# Dr. Abdurahman Qasimlo

Dr. Abdurahman Qasimlo di 22.12.1930an de li bajarê Ormiyê, li rojhilatê Kurdistanê hatiye dunyayê. Ji malbateka dewlemend e. Dr. Qasimlo digot " sala ku Simkoyê Şikakî şehîd kirin, ez hatime dunyayê ".Xwendina xwe ya seretayî û nawendî li bajarê Ormiyê dike. Paşê diçe Tehranê dixwîne. Dr. Qasimlo di sala 1945 an de, di 'Yekîtiya Ciwanên Demokratê Kurdistanê' de dest bi xebata xwe ya siyasî dike. Doktor diçe Parîsê û li wê derê xwendina xwe ya zankoyê dewam dike. Li Parîsê li dijî Şahê Îranê xebatek baş dike. Jiyana wî, li Parîsê ji aliye Îraniyan de dikeve talûkê û ji wê derê derbasî Paragê dibe. Prag, paytexta Çekoslovakya yê. Doktor xwendina xwe li Pragê dewam dike. Di sala 1951 an de, dibe berpirsiyarê 'Yekîtiya Xwendevanên Navneteweyî'. Di 1952an de Şahê Îranê ji ser text tînin xwarê û hukumeta Musadiq tê ser text. Doktor jî xwendina xwe diqedîne û dadigere Tehranê. Piştî 6 mehan tê Mahabadê. Lê li dijî hukumeta Musadiq darbe çêdibe û Qasimlo derbasî Iraqê dibe. Di sala 1957an de, dadigere Çekoslovakyayê. Di dema ku Mele Mistefa Barzanî ji Sowyetê dadigere Iraqê, ew jî bi çend hevalên xwe re tê başûrê Kurdistanê. Dixwazin li rojhilat xebatên Kurdîniyê û rêxistinî bikin. Doktor di sala 1962na de dadigere Çekoslovakyayê û doktora xwe ya li ser aboriyê dike.

Di Zankoya Pragê de dest bi dayîna dersan dike û weka Profesorê ekonomiye dewam dike. Di sala 1968an de dema ku Sowyet Çekoslovakyayê dagir dike, ew wan protesto dike û derbasî Parîsê dibe. Piştî Peymana 11 ê adara 1970 yan doktor derbasî başûr dibe û di Wezareta Plandananê de dibe pisporê aboriyê li Bexdayê. Her dem tê cem Mele Mistefa Barzanî û di sala 1972an de dibe endamê Komîteya Mawendî ya Partî Demokratî Kurdistana Îranê û paşî dibe sekretere wê. Diçe Parîsê û li wê derê di Zankoya Sorbonê de dersa ekonomiye dide.

Di sala 1979an de dema Ayetullah Humeynî hat ser hukum, ew jî derbasî rojhilatê Kurdistanê dibe. Dewleta Îranê bi Kurdan re dest bi şer dike û mafek nade wan. Ew bi salan li dijî dewleta Îraniyan şer kirin. Gelek herêmên wan yên rizgarkirî hebûn. Li dora 40 hezar pêşmergeyên wan û Komelê hebûn. Her kesê ku ji derveyê Kurdistanê bihata Kurdistanê, diçî ji partiyêîzna xwe digrt da karibe li Kurdistanê bigere. Xelkê perwerde dikir û digot ' Xelkê cahil,xwediyê xwe dikuje.Lewra divê bên perwerdekirin'. PDK a Îranê bi xêra Dr. Qasimlo bûbû endamê Tevgera Sosyalîst Enternasyonalê.

Di sala 1988 û 1989an de du cara bi nûnerên dewleta Îranê re rûniştin da li ser mafên Kurdan li hev bikin. Mixabin di kombûna 13.07.1989an de, ji Aliyê Îraniyan de, li Viyana, paytexta Awusturyayê di civîna navbera her dû aliyan de, ji aliyê dewleta Îranîyan de hat şehîd kirin. Endazyarê kuştina Dr. Abdurahman Qasimlo, serokê Komara Îranê yê berê Ahmedî Nejad bi xwe ye. Cenazê wî birin Parîsê û li wê derê defin kirin. Ew ji bo seranserê Îranê demokrasi û ji bo Kurda otonomi dixwest. Çend pirtûkên Dr. Abdurehman Qasimlo hene. Yek ji wan '40 sal Di Rêya Azadiyê de' ye. 'Kurd û Kurdistan' navê pirtûkeka wî ya dinê ye.

Serfiraz Ûcê

# سورة الرحمن

YÊ DILOVAN — سورة الرحمن

BI NAVÊ YEZDANÊ DILNERM Ê DILOVAN — بِسْمِ اللَّهِ الرَّحْمَٰنِ الرَّحِيمِ

Yê Dilovan — الرَّحْمَٰنُ ﴿١﴾

fêr kir Qur'an, — عَلَّمَ الْقُرْآنَ ﴿٢﴾

afirand insan — خَلَقَ الْإِنسَانَ ﴿٣﴾

û ew hînî axivînê kir. — عَلَّمَهُ الْبَيَانَ ﴿٤﴾

Heyv û roj li çerxa xwe dizivirrin — الشَّمْسُ وَالْقَمَرُ بِحُسْبَانٍ ﴿٥﴾

û dar û stêr (lem) xwe li ber Wî diçemînin. — وَالنَّجْمُ وَالشَّجَرُ يَسْجُدَانِ ﴿٦﴾

Wî bilind kir esman û danî terazû — وَالسَّمَاءَ رَفَعَهَا وَوَضَعَ الْمِيزَانَ ﴿٧﴾

daku hûn di kêşanê de neheqiyê nekin; — أَلَّا تَطْغَوْا فِي الْمِيزَانِ ﴿٨﴾

bi dadperwerî bikêşin, terazûyê xelet nekin — وَأَقِيمُوا الْوَزْنَ بِالْقِسْطِ وَلَا تُخْسِرُوا الْمِيزَانَ ﴿٩﴾

Erd Wî bo mirovan danî; — وَالْأَرْضَ وَضَعَهَا لِلْأَنَامِ ﴿١٠﴾

fêkî û darqesp û berhemên wan, — فِيهَا فَاكِهَةٌ وَالنَّخْلُ ذَاتُ الْأَكْمَامِ ﴿١١﴾

kakil di qalikên xwe de û giyayên bênxweş lê ne. — وَالْحَبُّ ذُو الْعَصْفِ وَالرَّيْحَانُ ﴿١٢﴾

ka hûn bi çi karên Xwedayê xwe ne bawer in? — فَبِأَيِّ آلَاءِ رَبِّكُمَا تُكَذِّبَانِ ﴿١٣﴾

# Roviyê fenek

Wergerandin: Gulbuhar Ûcê




















Piştre di dilêxwe de got:
--Feqîrê min! Doh êvarê ez wisa bi ser de pir qîriyam ku herhal ew ji malê çû û careke din hew vedigere."
Lê dema ku Azad ji dara fasûliyê daket erdê, diya wî şaş û metel ma, û bi kêfxweşî çû cem wî ji bo ku wî maçî bike. Lê Azad ji diya xwe re got:
--Dayika min a şîrîn! Tu dibînî ku ew fasûlî bi rastî jî bisihir bû. Kerem bike, ev ji bo te ye!
Û wî ew torbeya tijî zêr da diya xwe.
Jinika feqîr serê xwe rakir asîmanê û spas kir ji ber ku kurekî ewqas jêhatî daye wê û ew herdu bi rojan, bi saya wan zêrên hûtî di kêf û xweşiyê de jiyan.
Piştî çend mehan, zêr hemû xelas bûn û Azad biryar da careke din here wê qesra nav ewran.
Îca ew dîsa hilkişiya ser dara fasûliyê û çû xwe gihand wê qesrê. Dema ew ket nav qesrê, bi kubarî silav da dêwê û got: --Rojbaş xanima delal, ji kerema xwe hûn dikarin tiştekî xwarinê bidin min?
Dêwê bi ser wî de qîriya got: --Pîso! Ma tu fedî nakî ji min xwarinê dixwazî? Cara din tu hatî vir û te torbeyek zêrên me dizîn. Berî ku Azad devê xwe veke û tiştekî bibêje, qesir dîsa hejiya û dengê piyê hût hat: Gurm! Gurm! Gurm! Dêwê bi lez got: --Zû bazde xwe di nav firûnê de veşêre.
Azad ji bo xwe veşêre, xwe avêt nav firûnê, lê belê wî deriyê firûnê hinek vekirî hişt ji bo ku bikaribe bibîne ka hût wê çi bike.
Hûtê qerase berazekî qelew û qefesek danîn ser maseyê. Piştre hût derdora xwe bêhn kir û bi dengekî bilind got: --Bêhna goştê teze tê ber pozê min!
--Erê rast e, got dêwê, lê ew bêhn, bêhna vî berazî ye. Ka aliyê min bike em wî hazir bikin û bipijînin.
Hût got:
--Erê, jixwe dilê min jî pir dibijiya berazekî ku di firûnê de hatibe pijandin.
--Na, got dêwê, baştir e em vî berazê bidohn di koza agir de bipijînin.
Îca dêw û hût bi hev re ew beraz di argûnê de biraştin û bi îştaheke ecêb xwarin. Piştî xwarinê jî hût deriyê wê qefesa vekir û jê mirîşkeke zêrîn derxist. Wî ew danî ser maseyê û got:
--Hêkeke zêrîn bike. Û mirîşk hêkeke zêrîn kir.



# Sirûda Abeya Kurdî

Dilawerê Zengî

Bijî bijî Kurdistan
Me rê girtî biçûkan
Emê herin dibistan
Ji bo hînbûna ziman

Zimanekî şêrîn e
Ciwan û hungivîn e
Elîfbeyê bixwîn e
Sîh û yek tîp bi cî ne

Ji tîpan heşt şiyar in
Bîst û sisê xewar in
Navê wana dengdar in
Bê dengdêr ne li kar in

Dengdêr, pênc jê stûr in
Tîp in girs û dengdûr in
Sisyê mayî pir kûr in
Him kurt in him jî hûr in

Dibistana têkoşer
Hînbûne wane ji ber
Kar û xwendin, zanewer
Mamostê me Dilawer.



Lîstika SODOKO ji (36) çarqoriziyên biçûk , û şeşên mezin pêk tê. ji te tê xwestin ku tu çarqorziyên vala bi jimaran ji (1) ta (6) dagire bê ku tu her jimareke ji carekê bêhtir bikar bîne ne di çarqorziyên biçûk de ne jî di rêzande .

| | | | | | |
|---|---|---|---|---|---|
| 6 | 1 | | | 5 | 3 |
| | | 5 | 6 | | 1 |
| 2 | 4 | | | | 5 |
| 5 | | | | 3 | 2 |
| | | 6 | | | |
| 4 | | 2 | | 1 | 6 |

Bersiva hejmara12

| | | | | | |
|---|---|---|---|---|---|
| 1 | 6 | 4 | 2 | 3 | 5 |
| 3 | 2 | 5 | 4 | 1 | 6 |
| 5 | 1 | 2 | 3 | 6 | 4 |
| 4 | 3 | 6 | 1 | 5 | 2 |
| 6 | 4 | 3 | 5 | 2 | 1 |
| 2 | 5 | 1 | 6 | 4 | 3 |

# Em zarokin

Zarokin em zarokin
Kulîlk û gulbînokin
Pepûlê Kurdistanin
Gulnar û şimamokin
Em kurdin hejarin
Bê ziman û welatin

Ew neyarên dil bi kîn
Ji welatê me narin
Dibê em bixwînin
Em mafê xwe pêkbînin
Dijmin rakin ji xaka xwe
Kurdistanê em bistînin

Dr. Memdûh Elî

## Van tîpa li jêr bi cî bikin

1+4-2 B

6-2-2 I

7+2-8 D

9-2-2 S

6-4+6 N

6+4-3 A

4-0+0 I

5+3-2 T

| 1 | 2 | 3 | 4 | 5 | 6 | 7 | 8 |
|---|---|---|---|---|---|---|---|
| | | | | | | | |

# Şîr




oh... ez westiyam
û nema karim
bixwînim




vî şîrî vexwe
şîr pir başe


şîr û her tiştên ku jê
têne çêkirin jêdera
Enerjiyê ne jiber ku 15
cûreyên vîtamîn û
mîneralan têde hene

